

## Peyama sersaxiyê ya serokê Herêma Kurdistanê bo sekreterê giştî ê PDKÎ

»»» R:2





## Rêhevalên Şehîd Serwan Çeko, di nav rondikan de, ew ber bi aramgeha ebedî birêkirin

»»» R:3

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (278) 21-05-2016 Buha (500) Tûmen*

# Pêngav bi pêngav digel termê şehîd Seyîd Riza Dirûdger ber bi goristana şehîdan



**Termê şehîd Seyîd Riza Dirûdger endamê pêşîn ê Komîteya Nawendî a PDKÎ di goristana şehîdan a PDKÎ de, bi xaka pîroz ya nîştiman hate spartin.**

Piştînîvroya roja Pêncşemiyê 30'ê Banemerê, termê şehîd Seyîd Riza Dirûdger endamê pêşîn ê Komîteya Nawendî a PDKÎ bi beşdariya Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ, endamên rêberî, û kadr û pêşmergeyên PDKÎ, û komeke berçav ji mêhvanan piştî "rêje û sana leşkerî" bona rêzgirtina ji xebat û tekoşîna wî, li goristana şehîdan de bi axê hate spartin.
Piştre Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî ê PDKÎ bi nûnertiya Deftera Siyasî a PDKÎ çend gotinek pêşkêş kirin.
Hesen Şerefî di destpêkê bixêrhatina hemû hizb û aliyên siyasî û kesayetiyan û mêhvanên beşdarbûyî di vê rêûresmê de kir, û got: "Em hemû bi sedema xema jidestdayîna kak Seyîd Riza Dirûdger li vir kom

»»» R:6

## Rejîma Îranê di Tehranê de, "binêr"ên propagendeyî li dijî PDKÎ danîne



**Rejîma Îranê di doma çalakiyên xwe yên li dijî PDKÎ û neteweya Kurd de, "binêr" teblîxatî di cihên giştî de danîne.**

Li gora rapora ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, nawendên propagendeyî ên rejîmê, "binêr"ên hilgirê nivîsên çewtekarane û pirr ji bêhurmetî li dijî berpirsyarên hizbî di cihên giştî ên Tehranê de danîne.
Heyamek berî niha jî nawenda xwendin û lêkolînên ser bi nawendên Îtila'atî ên rejîma Îranê pirtûkek li jêr navê "PDKÎ" weşand, û naweroka wê li dijî xebata neteweya Kurd û PDKÎ ye.

Digel destpêkirina xebata nû a PDKÎ, rejîma Îranê teblîxata xwe li dijî PDKÎ zêde kiriye.

Danîna "binêr"ên propagendeyî ên bi vî rengî, ku çewtekarî tê de hene, di demekê de ye, ku li gora şahidiya dîroka rastîn, û xebatkarane ya PDKÎ, rejîma Îranê deskevtên şoreşa sala 1979'an talan kir, û li dijî neteweya Kurd biryara cîhadê da, û di hember de Kurdan jî bergirî ji nasnameya xwe kirin, û PDKÎ hilkeliyê vê xebata mafxwazane ye.

## Sergotar

# Rabûneke dijminhejîn

Kerîm Perwîzî



Dijminê sereke yê Kurdan, Komara wilayeta sêdarê, li ser vê baweriyê bûye, û heye ku bi înkar û haşakirinê dikare neteweyekê bihelîne û tevgerekê di dîrokê de winda bike.

Yek ji parametrên sereke ên siyaseta şaş a rejîma Komara Îslamî haşalêkirin, û di nav bêdengiyê de helandina aliyên din e, ku ew siyaset ji serdema Xomêynî ve hate darêtin, û hate birêvebirin, û heya niha jî ew li ser vê pêvajoya dijî mirovî berdewam in.

Xomêyniyê tawanbar bona nehêştina neteweya Kurd biryara cîhadê da, û ew partiya xebatkar û pêşeng wekî partiya "munhele" ya Demokrat bi nav kir, da ku wisa nîşan bide ku ew partiya di jiyan û di cîhanê de nemaye. Lê di sala 1979'an de, heya dema mirinê, Xomêynî û heya çend salan piştre jî, wan li dijî PDKÎ şer kir, û xortên xelkê dane kuştinê, û li goristanan de jî, li ser kêlên qebrên wan nivîsandine "zidê inqilab" (dijî şoreş), û Hizba "Monhele".

Çend salek e jî ku PDKÎ li ber berjewendiya bilind ya neteweyî, xebata çekdarî ragirtiye, û Komara Îslamiya Îranê jî ragehandiye ku wan "Girûpa Me'idûm" û "jinavçûyî" ji nav birine.

Niha ku PDKÎ biryar daye ku xebata çiya û bajaran pêkve girê bide, û biryara "rabûb"eke din daye, Komara Îslam teb û lerz ketiye laşê wê de, û her rojê bîr ji pîlanekê dike, û her rojê gefekê dixwe. Rojekê manora Spaha Pasdaran heye, û rojekê çekdarkirina caşan, û rojekê daxistina bazarçeyên sînorî, û heya kar digihîje ser şandina berpirsyarên dezgeha ajantî û çewsînerên wan, bo vir û wir, ew yek jî, tenê kêmek ji wan hemû hewlên rejîmê yên li dijî tevgera Kurd in.

Her demekê reh û rîşeyên civakê, darebena partiyke şoreşger li ser bê avakirin, û ragirê van kok û binkokan bin, reşeba û bahoz û bi dehan pîlanên dijminan jî nikarin ku wê bihejînin, û piştî her zext, û givaş û lawaziyekê cardin serî hildide, û bi her livlivînekê çiloyeke hêviyê dide xelkê, û tirs û sameke bi gurr dixe nava dilê dijmin de.

Lewra bi hûrbûna li xebata PDKÎ, wekî xebateke rastîn, û rastiya şoreşa wê, ji me re eşkere dibe, ku: "Hekî PDKÎ hizbeke jinavçûyî û hilweşiyayî ye, û bandora wê nemaye, çima dijmin ew qas jê ditirse, û bona dijberîkirina digel wê amade ye ku her nirxekê bide, û heya di paytextê deshilata xwe de jî "binêr"ên propagendeyî li dijî PDKÎ dadinê,û vê partiyê wekî partiyeke terorîst dihesibîne.

Tenê bersiv bo vê pirsyarê û pirsyarên bi vî rengî ew e ku hekî libekê jî ew hizba ku hilkeliyê reh û rîşeyên civakê ye, xwe bilivlivîne, û bikeve nava tevgerê de, dikare koka rejîma wilayeta sêdarê biqelîne.

## Peyama sersaxiyê ya serokê Herêma Kurdistanê bo sekreterê giştî ê PDKÎ

**Birêz Mes'ûd Barzanî serokê Herêma Kurdistanê deheq koça dawiyê ya Çeko Rehîmî, endamê Komîteya Nawendî a PDKÎ peyameke hevxemiyê ji rêzdar Mistefa Hicrî re şand, ku deqa vê peyamê bi vî awayî ye:**





Bi navê xwedayê mezin û dilovan
Birayê min ê birêz Kak Mistefa Hicrî
Sekreterê Giştî ê PDKÎ
Silav û Rêz
Bi kul û kesereke mezin ve, me nûçeya koça dawiyê ya pêşmerge û fermandê kêrhatî (lêhatû) kak Çeko Rehîmî, endamê Komîteya Nawendî a PDKÎ bihîst ku bi nexweşiyê koça dawiyê kir.

Di vê derheqê de, ez sersaxiyê dibêjme we, û malbat û kes û karên xwedê jê razî, û serkirdayetî, û endamên hizba we, û xwe bi hevsozê xema we dizanim.

Ez ji xwedayê mezin daxwazkarim, ku wî bi biheşta berîn şad bike, û sebr û aramiyê jî bibexşe hemû aliyekî.

**"Ina Lilah, we Ina Êleyhê Raciûn"**
**Mes'ûd Barzanî**
**Serokê Herêma Kurdistanê**
**12.05.2016**

## Cîgirê Yekem yê Sekreterê Giştî yê Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistanê peyama sersaxiyê bo Mistefa Hicrî şand

**Birêz Kosret Resûl Cîgirê Yekem yê Sekreterê Giştî yê Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistanê, derheq bi koça dawiyê ya Serwan Çeko Rehîmî, peyama sersaxiyê bo Mistefa Hicrî, Serkreterê Giştî yê Hizba Demokrat a Kurdistanê Şand.**



Eva deqa peyamê ye:
Birayê gellek rêzda Mistefa Hicrî!
Berêzan Endamên Deftera Siyasî yên Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê!

Silavekî gerim

Mixabin û bi daxeke zêde ve, me nûçeya koça dawiyê ya Serwan Çeko Rehîmî bihîst, bi vê boneyê ve em sersaxiyê dibêjne we hemû aliyan, û şirîkê xema we ne.

Xwedayê mezin ruha wî bi Beheşta Berîn şa bike, û sebrê û aramiyê bide we û malbata Serwan Çeko.

"انا لله و انا اليه راجعون"
**Birayê we Kosret Resûl**
**12.05.2016**

# Rêhevalên Şehîd Serwan Çeko, di nav rondikan de, ew ber bi aramgeha ebedî birêkirin

**Termê Şehîd Serwan Çeko Rehîmî Endamê Komîteya Nawendî ya Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê, ku bi sedema "Sekinîna Dil", koça dawiyê kiribû, di goristana şehîdên Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê de, bi axa piroz ya nîştiman hate spartin.**

Spêdeya roja Înê berwarê 13'ê Gulanê a sala 2016'an, termê Serwan Çeko Rehîmî Endamê Komîteya Nawendî ya Hizba Demokrat a Kurdistanê, ku damezrênerê Fêrgeha Siyasî – Nizamî ya Hizba Demokrat bû, bi pişikdariya Mistefa Hicrî sekreterê giştî, endamên rêberî, kadr û pêşmereyên Hizba Demokrat û hejmareke berçav ji mêhvanan, piştî birêvebirina "Rêjeyeke Leşkirî" bona rêzgirtin ji xebat û tekoşîna Serwan Çeko, bi axa pîroz ya nîştiman hate spartin.

Piştre Hesen Şerefî Cîgirê Sekreterê Giştî yê Hizba Demokrat a Kurdistanê, bi nûneratiya Deftera Siyasî ya Hizba Demokrat, çend gotinek pêşkêşî pişikdarên rêûresmê kirin.

Hesen Şerefî serbarê bixêrhatina mêhvanan, û kesayetî û aliyên siyasî û pişikdarên rêûresmê bixakspartina Serwan Şeko Rehîmî, ragehand ku, "Em bi sedema koça ji nişkê ve ya Serwan Çeko Rehîmî, li vir kom bûne, da ku termê wî bi axa pîroz ya nîştiman bispêrin, ev axa ku bi ew qasê tekoşîn û emegnasî ve, Serwan Çeko berevanî jê dikir".

Hesen Şerefî di parek din a gotinên xwe de zêde kir ku, "Serbarê vê ku me termê pîroz yê vî xebatkarê xwe yê sadiq û rastbêj bi axê spart, lê du peyamên me hene.

Yekem eva ye ku, emê dirêjîderê rêya wî bin, û wî ev rêya pîroz bi rêvîngên vê rêyê spart.

Ya Duhem eva ye ku, hêvî û awata Serwan Çeko hêvî û awata me û hemû xebatkarên Kurd e, û di vir de emê sozê bidin ku, rêya wî bidomînin".

Di dawiyê de Hesen Şerefî spas û pêzanîna xwe pêşkêşî hemû hizb û aliyên siyasî û kesayetî û mêhvan û pişikdarên rêûresmê kir.

Piştre Akam Rehîmî kurê Şehîd Serwan Çeko di vê derheqê de çend gotinek pêşkêş kirin, û tê de ragehand ku, "Spasa hemû andamên Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê dikim, ku di rêûresma bi axê spartina Şehîd Çeko de, pişikdar bûn".













Akam Rehîmî di beşek din a gotinên xwe de zêde kir ku, "Şehîdbûn û jidestçûna Serwan Çeko, taybet nine bi malbata me, belkî ya Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê ye, û em xwe bi bextewer dizanin ku di xem û kovana jidestçûna babê me de, pişikdar bûne".

Piştî bi axê spartina termê Serwan Çeko, rêûresmek pirse û sersaxiyê di Sikirtariyeta Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê de, bi rê ve çû.

# Rêûresma sersaxiyê ya şehîd Serwan Çeko di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de

**Kurdistanmedia: Rêûresma sersaxiyê ya şehîd Serwan Çeko Rehîmî endamê Komîteya Nawendî ya PDKÎ di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de bi rê ve çû.**

Roja Pêncşemiyê 23'ê Banemerê (12'ê Gulan)'ê rêûresma sersaxiyê ya Serwan Çeko Rehîmî bi beşdariya Mistefa Hicrî sekreterê giştî û endamên rêberî û kadr û pêşmerge û komîteyên Teşkîlatê ên PDKÎ li Başûra Kurdistanê û komek ji partî û aliyên siyasî ên her çar beşên Kurdistanê û mêhvanan, di hola (salona) giştî ya rêûresmên PDKÎ de bi rê ve çû.

Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ tevî îşarekirina bi xem û birîna kûr û giran ya şehîdbûna Çeko Rehîmî, bas ji berxwedan û emegnasî û berpirsayetiya Serwan Çeko kir û ragehand: "Serwan Çeko kesekî xwedî îman, û xwedî îrade di çepera xebatê de bû, û herdem di hewla perwerdekirina pêşmergeyên PDKÎ de bû, û bi dil-sojiyeke bê mînak, erkên xwe çi di organên PDKÎ de, û çi jî di dem û wextên din de bi rê ve dibir, û hertim di xema PDKÎ de bû".

Pişre Xatû "Hêro Celdiyanî" hevjîna Serwan Çeko bas ji jiyana pirr berhem û şoreşgerane ya kak Çeko kir.

Navbirî di beşeke axivtinên xwe de got: "Serwan Çeko di demeke gellek hestiyar û dijwar de heval û hevçeperên xwe bi cih hêlan, lê bi xatircemî ve hûn riya Serwan Çeko bernadin".

Hevjîna şehîd Çeko herwisa bas ji dilsojiya Serwan Çeko kir, ku hertim xema hizba xwe dixwar, û bi dilsojiyeke bê mînak ve, karên xwe bi rê ve dibirin".

Di vê rêûresmê de çendîn partî û aliyên siyasî û kesayetî, yan di rêûresmê de beşdar bûn, yan jî peyama sersaxiyê ji rêûresmê re şandibûn, ku bi vî awayî bûn:






**Rojhilat:**

-Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê
-Komele-Rêkxirawa Kurdistanî ya Partiya Komonîst a Îranê
-Komeleya zehmetkêşên Kurdistanê
-Saziya Xebat a Kurdistana Îranê
-Hevalên pêşîn (Ew hevalên ku di kongireya 13 de ji PDKÎ cuda bûne)

**Başûr:**

-Cihgirê yekem ê sekreterê giştî ê YNK'ê (kak Kosret Resûl)
-Mekteba peywendiyên PDK'ê
-Mekteba peywendiyên Kurdistanî ên YNK'ê
-Eta Serawî bi nûneratiay Encumena Nawendî ya YNK'ê
-Hizba Zehmetkêşan a Kurdistanê
-Qaîmqamê qezaya Koyê, Şêx Çapok
-Nûnerê serokê Herêma Kurdistanê bo karûbarên civakî li Pişderê
-Xefûr Mexmûrî-sekreterê Yekîtiya Neteweyî Demokratîk a Kurdistanê
-Yekîtiya Zanayên Ayînî a Kurdistanê
-Melbenda 14'ê a Rêkxistina Koyê-YNK
-Partiya Demokrat a Kurdistanê –Navçeya Koyê
-Hizba Şiyu'î a Kurdistanê –Komîteya qezaya Koyê
-Tevgera Goran, Koye
-Serokatiya Zankoya Koyê
-Yekgirtûya Îslam a Kurdistanê-melbenda 14'ê a derdora Hewlêrê, Koye
-Birêveberiya Asayişê ya rojhilata Hewlêrê
-Birêveberiya Perwerdehiya Koyê
-Birêveberiya şehîd û enfalkiriyên Koyê
-Birêveberiya Hatûçûnê a Koyê
-Birêveberiya Banka Bawacî
-Birêveberiya Banka Koyê
-Birêveberiya Neft û kanzayên Koyê
-Birêveber û mamostayên xwendingeha Rojhilat
-Birêveberiya "Baca deramed"ê a Koyê
Birêveberiya Amarê ya Koyê
-Hêza taybet a pêşmergeyên mîhwera 4'ê a Başûra Kerkûkê
-Tora Çetra Rêkxirawan

**Bakur:**

-Partiya Sosyalîst a Kurdistanê-Mes'ûd Tek
-Partiya Azadî a Kurdistanê- Bakur
-Partiya Demokrat a Kurdistanê-Bakur
-Partiya Welatparêz a Demokrat- Bakur

**Rojava:**

-Partiya Demokrat a Kurdistana Sûriyê (PDKS)
-Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurdistanê li Sûriyê
-Gellek kesayetî û mamostayên zankoyê û rêkxirawên civaka medenî li her çar beşên Kurdistanê
-Malbata Mela Hesen Şîweselî

## Li Norwêjê rêûresma rêzgirtina ji her du hevalên şehîd bi rê ve çû

**Li "Oslo"ya paytextê Norwêjê de, rêûresmek bona rêzgirtina ji hevalên koçkirî, heval Seyîd Riza Dirûdger û heval Serwan Çeko Rehîmî bi rê ve çû.**

Roja Şemiyê 14'ê Gulanê, rêûresma rêzgirtina ji herdu kadrên rêberiyê ên PDKÎ, heval Seyîd Riza Dirûdger û heval Serwan Çeko Rehîmî bi beşdariya beşeke berçav ji endamên PDKÎ, alîgir û dost û hêzên siyasî ên her çar beşên Kurdistanê bi rê ve çû. Di destpêkê de, sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" hate xwendin, û deqeyek bêdengî bona rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan hate ragehandin.

Piştre Kak Şaho Husênî endamê rêberiya PDKÎ li ser kesayetiya heval Seyîd Riza Dirûdger û heval Serwan Çeko Rehîmî axivtinek kir.
Piştre peyama Komîteya Giştî ya PDKÎ li Norwêjê ji aliyê kak Nadir Qudretî ve hate xwendin.
Di beşên din de, wan kesayetiyan li ser heval Seyîd Riza Dirûdger û heval Serwan Çeko Rehîmî axivtin kirin:

Kak Dr. Xelîqî
Kak Baba Elî Mêhrperwer
Kak Kawe Rehîmî, birayê şehîdê fermande Kak Çeko Rehîmî
Kekê Silêman Keleşî
Kak Seyîd Birahîm Haşimî
Kak Şoriş Dirûdger, kurê şehîd Seyîd Riza Dirûdger
Herwisa fîlmek hate nîşandan, ku li ser jiyan û xebata Kak Seyîd Riza hatibû amadekirin.
Di beşeke din ya vê rêûresmê de, pexşanek ji aliyê Şeyda Kemanger ve hate xwendin.
Hêjayî basê ye ku gellek peyamên hevxemiyê jî di vê derheqê de gihîştibûne vê rêûresmê.
Di vê rêûresmê de, endamên PDKÎ li welatên Swîd û Danmarkê jî beşdariyeke berçav kiribûn.

https://www.facebook.com/groups/









## Albanî encamderê teqîna di ofîsa Hizba Komara Îslamî de radest nake

**Fermandê "NACA"yê ragehand ku ew kesê di ofîsa Hizba "Cimhoriyê Îslamî" de bombe danîbû, li Albaniyê de ye, lê ew, wî kesî radestî me nakin.**

Li gora nûçegihaniyan, Husên Eşterî fermandarê hêza Întizamî a Komara Îslamî a Îranê, ragehandiye ew kes endamê "Mucahinê Xelq" e, û niha li Albaniyê de ye. Ew kes jin e, û di sala 1981'an de bomb di ofîsa Hizba "Cimhoriyê Îslamî" de danîbû.
Pêştir hatibû ragehandin ku ew kes navê wî, Mes'ûd Kişmîrî ye, lê niha ew yek tê retkirin, û li gora lêkolînên hêzên ewlekariya rejîma Îranê ew kes jin e.

Hejmarek ji endamên Saziya Mucahidînê Xelq piştî du êrîşên çekdarî li dijî cihê akincîbûna wan, li kempa Lîbirtî li Îraqê de, bi alîkariya NY di sala 2013'an de, bo Albaniyê hatin veguhastin, û heya niha jî, hemû bo wir nehatine şandin, û tê texmînkirin ku 3 hezar endamên "Mucahidînê Xelq" di Albaniyê de bin.
















»»» R:1

da ku termê navbirî bi xaka pîroz ya nîştiman bispêrin ku ew bi wateya xwe ya rastîn, kesekî sadiq û têkoşer bû”. Piştre Şine Dirûdger keça şehîd Seyîd Riza Dirûdger çend gotinek pêşkêş kirin, û di axivtina xwe de spasiya hemû endamên PDKÎ kir, ku di xema jidestdana şehîd Seyîd Riza Dirûdger de, beşdar bûne û got: “Şehîdbûn û jidestdana bavê me, xemeke giran bû, bo hemû malbata Demokrat”. Wê herwisa îşare bi gotineke Dr. Qasimlo kir û got: “Herwekî ku şehîd Dr. Qasimlo kerem dike: karwanê şehîdên me dirêj e, û renge ji vê hindê jî dirêjtir be, lewra emê jî bi hemû hêz û vîna xwe, berdewam bin li ser xebatê, heya gihîştina bi rizgariya neteweya xwe”.

Roja Înê 6’ê Gulanê kadrê pile yek ê PDKÎ, Seyîd Riza Dirûdger bi sedema sekinîna dil, li bajarê Bêrgên a Norwêjê de, piştî çend salan dûriya ji welat , û berberekaniya digel mirinê, dilê wî ê mezin ji lêdanê ket, û doma rê û şopa xwe ya pîroz bi heval û hevçeperên xwe di PDKÎ de spart.

# Rêûresma sersaxiyê ya kak Seyîd Riza Dirûdger di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de bi rê ve çû





**Rêûresmeke sersaxiyê bo hevalê koçkirî kak Seyîd Riza Dirûdger endamê pêşîn ê rêbertiya PDKÎ ku di welatê Norvejê bi sedema nexweşiyê koça dawiyê kir, di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de bi rê ve çû.**

Roja Şemiyê 7'ê Banemerê rêûresma sersaxiyê ya kak Seyîd Riza



Dirûdger bi beşdariya Mistefa Hicrî sekreterê giştî û endamn rêberî û kadr û pêşmergeyên PDKÎ û komek ji mêhvanan di hola giştî ya rêûresmên PDKÎ de bi rê ve çû. Mistefa Hicrî tevî îşarekirina bi xebata çendîn sale ya kak Seyîd Riza Dirûdger ragehand: "kak Seyîd Riza Dirûdger yek ji wan kesayetiyên şoreşger bû ku hertim di bîra ber bi pêşvebirina kar û erkên hizbî de bû, û hemû jiyana xwe bo xebata hizbî danî, û emegedariya xwe bi rê û şopa şehîdan di jiyana wî de selimand".

Piştre Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ çend gotinek li ser jiyana pirr berhem û şoreşgerane ya kak Seyîd Riza Dirûdger pêşkêş kir.

Mistefayî di beşeke axivtina xwe de ragehand ku kak Seyîd Riza Dirûdger bi wateya xwe ya rastîn kesekî xebatkar bû, û nevestane erkên hizbî bi rê ve birin, û em jî dibe ku riya kak Seyîd Riza Dirûdger û hemû şehîdên riya Kurd û Kurdistanê bidomînin.

Hêjayî base ye ku roja Înê 17'ê Banemerê (06.05.2016)'an, Seyîd Riza Dirûdger endamê pêşîn ê rêberatiya PDKÎ, û birayê du şehîdên serbilind ên riya azadiyê, li Norwêjê û di temenê 69 saliyê de bi sedema kirîza koça dawiyê kir, û dirêjiya rêbaza xwe ya pîroz bi hevalên xwe spart.

Seyîd Riza Dirûdger di sala 1326 (1947)'an di nav malbateke naskirî û welatparêz li bajarê Pawe a Rojhilata Kurdistanê, ji dayîk bû. Wî heya qonaxa "fewqê dîplomê" di warê hîsabdarî de ders xwend. Piştî serhildana şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de, wekî demokrateke xwedî bîr û bawer çalakî kir, û heya dawî demên jiyana xwe, bi rê û şopa pirr ji serwerî ya xwe emegdar ma. Hevalê koçkirî Seyîd Riza



Dirûdger di sala 1988'an de, û di dema kongireya heştem a hizbê de, bi sedema sidaqet, kêrhatîbûn, û bîr û baweriya wî ya hesinîn (polayîn), wekî endamê rêberiya hizbê hate hilbijartin, û heya sala 2009'an ku bo çareseriya nexweşiya xwe çû derveyî welat, di hemû kongireyan de dengê baweriyê, wekî kadrê rêberiya hizbê bi dest xist.

## Komeleya Şoreşger serxweşî li PDKÎ kir



**Heyeteke Deftera Siyasî a Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê di serdanekê de, bo Deftera Siyasî a PDKÎ, derheq koça dawiyê ya endamê pêşîn ê rêberatiya PDKÎ sersaxî gote PDKÎ.**

Roja Duşemiyê 9'ê Gulanê Heyeteke Deftera Siyasî a Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê bi serperestiya Enwer Mihemedî endamê Deftera Siyasî a Komelê, serdana Deftera Siyasî a PDKÎ kir, û ji aliyê heyeteke PDKÎ ve bi serperestiya Mihemednezîf Qadirî hate pêşwazîkirin.

Di vê serdanê de, rêzdar Enwer Mihemedî, bi nûneratiya rêberatiya Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê derheq koça dawiyê ya Seyîd Riza Dirûdger sersaxî gote PDKÎ û malbata navbirî, û xwe bi şirîk û hevparê xem û kovana jidestdana Kak Seyîdriza da zanîn.

Di vê hevdîtinê de, Mihemednezîf Qadirî tevî eşkerekirina spas û pêzanîna xwe di hemberî heyeta Komelê de ragehand ku PDKÎ û Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê du partiyên hevalbend di xweşî û nexwşiyên hevdu de beşdar in. Di doma vê serdanê de herdu aliyan serdana malbata Seyîdriza kirin, û sersaxî gotne hevjîn, zarok û xizm û kes û karên navbir.

# Bihêztir ji mirinê



Kerîm Perwîzî

Rikeberiya di navbera jiyan û mirinê de, di nava dil û derûna hemû jîndarên cîhanê de, rikeberiyeke berdewam e, ku piraniya herî zaf ya jîndaran, yên ku dijîn û dilivlivin û vedigeşin, roj û demek wê bihê, ku mirin bi ser jiyana wî de zal be, û di vê rikeberiya ebedî û hertimî de, mirin serkevtiyê (vebirê) dawiyê ye.

Lê di vê navberê de, xaleke şaz û awarte heye, ku cuda ye ji vê pêvajoya cîhanî û çarenûsdiyar de, û di rastî de, di vir de "dawî"yeke din tê nivîsandin. Di ratsî de jiyan û hebûneke din heye ku tu carî bi dawî nahê.

Jiyana mirovên mezin, yên ku jiyana xwe bi moral û vîn û hezkirineke jiyandostane û dijî merg ve, dest pê dikin, û di binevrazên jiyanê de, bi berxwedan û afirandina rê û şopa jiyana serfirazane, xwe bi ser jîn û ketwarê (waqi'i) de disepînin, ew di rikeberiya berdewam ya vejiyan û mirinê de, jiyanê bihêz, û mirinê jar û lawaz
dikin, û di şerê dawiyê de jî bi ser mirinê de zal dibin, û mirina wan dibe vejîneke din.

karwaneke pirr ji serwerî û pirr ji şanazî ji comerd û mêrxas û jinên xwedîhest û berxwedêr ên Kurd û demokrat, bi vîn, û bi kiryar û bi cangorîtiya xwe, rûpela dawiyê ya rikeberiyên xwe, bi şehîdbûna xwe nivîsandine, û "şehîdbûn" serîtewandina bi "mirin"ê ye, û herikîna ava jiyanê ye, di nava demarên gel û şoreşê de.

***

Dîmeneke dîrokî:
Li her du aliyên rê, û li ser piyan, û bi henaseyeke (nefeseke) pirr ji rêz û bi çavekî xemgîn, lê tejî ji baweriya bi derbazkirina binevrazê pirr ji berbend û asteng, heval û hevçeperên Kak Çeko li pêşberî riya wê fêrgehê sekinîbûn, ku wî bixwe ew fêrgeh ava kiribû, û çavên wan li riya hatina mamostayê şoreş, disiplîn û hişarî û serwextiyê bûn.

Hatina vê carê ya mamosta, fermandar û serwan Çeko, cuda bû ji hatinên din.

Vê carê heval û hevçeper û dersxwan û malbat û hemû dostên wî, bona pêşwazîkirina ji navbirî sekinîbûn, vê carê dijmin dilê wî xweş bû, bi vê ku Serwan Çeko nemaye, da ku dersxwanên xwe perwerde bike, nemaye da ku pîlanên dijmin pûç bike.

Lê nezanîn ku Serwan Çeko di riyekê de pênbgav hilgirtiye, ku merg û neman tê de nîne, riyek e ku rê û şopa jiyanê ye, û rûpela wê ya dawiyê "vejiyan" jê dirêje.

***
Piyaseyeke pirr ji serwerî:
Şehîd Serwan Çeko di nava girseya heval û dostên xwe de, li ser mile pêşmerge, ji fêrgeha xwe ve, ber bi wargehê cangoriyên din ên xwe ve rê ket, û kadr û pêşmerge û hevriyên wî, û dersxwanên wî, ku soza emegdariyê bi rê û şopa wî dabûn, pêngav bi pêngav ew ber bi stargeh û aramgeha pîroz bi rê kirin.

Rêzgirtina pêşmergane, û marşa "Ey Şehîdan", dawî kiryarên peyman nûkirina digel Serwan Çekoyê şehîd bûn. Di dawiyê de, ew bi wê xaka pîroz hate spartin, ku di pêxema rizgariya wê de, jiyana xwe gorî kiribû, û di pêxema bextewariya xelkê xwedîmal ê vê xakê de, fîdakarî û xebat kiribû.

Piştî bi axê spartina termê şehîd Serwan Çeko hevçeperekî navbirî çend axivtinek kirin, û kurê wî jî, ew mizgînî da xelkê, ku hêvî û mirazên wî şehîdî, wê hasil bin, û êş û fîdakariyên wî, ji xwe re, û bêçine nebûne.

***
Şanaziyeke hertimî:

Rikeberiya jiyan û mirinê di nava jîndarên din, û di nava civaka mirovahiyê de jî, bi serkevtina "mirin"ê bi dawî tê.

Lê rê û şopeke din heye, ku karwaneke mirovî tê re derbaz dibe, û nahêlin ku mirin pêyka serkevtin lêde.

Di wê demê de ku mirovên bê hevta, û leheng, hêdî hêdî, riya dûr û dirêj ya jiyanê, bi karên bawermendane, û cangorîkerane ên xwe, wateyeke din didin jînê,

Di wê demê de ku bê rawestiyan, û bi serbilindî ve, pê datînin ser kore riya bidestxistina jiyana bextewerane bo kesên din ên cuda ji xwe,

Di wê demê de ku xema nîştiman, û xema xelkê, li ser milên biheybet û êş û cefakişandî ên xwe hildigrin, û barê xemên xelkê sivik dikin,

Di wê demê de, ku êş û azarên jiyana dijwar ya xebatê qebûl dikin, û tab dikin, da ku siberojeke xweş û aram bo nivşên bê pêk bînin,

Di wan deman de, rûpelên zêrîn ên jiyana şoreşgerane dinivîsin, û kêlî bi kêlî, bejna mirinê ser hevde diçirmisînin, û dibişivînin, û di rûpela dawiyê de, bi vejiyana xwe di nava dilê bi hezaran têkoşerên rê û şopa pirr ji serwerî ya xwe de, merg û mirinê dêxin qedeman, û li ser lat û zinarên gerdûn, şanaziyeke hertimî hildikulin, û dinivîsînin, ji bo îro, bo sibehê, û ji bo pêşerojê.

## Saziya Çavdêr a mafên mirovan: Leşkerên Tirkiyê zarokan didin ber gulleyan



**Saziya Çavdêr a Mafên Mirovan li dijî arteşa Tirkiyê raporek weşand. Ew saziya dibêje ku hêzên sînorparêzên Tirkiyê, bi bêy sedem penaberên Sûrî didin ber gulleyan.**

Ji meha Ut ya sala 2016'an şûnda sînorê di navbera Tirkiye û Sûriyê hatiye daxistin. Ji wê demê şûnda leşkerên Tirkiye mêr, jin û zarokên ku dixwazin ji sînor derbaz bibin, didin ber gulleyan.

Saziya Çavdêr a Mafên Mirovan di doma rapora xwe de radigehîne ku di navbera mehên Adar û Nîsanê de hêzên Tirkiyê ên li ser sînor 5 kes kuştine, ku yek ji wan zarok bûye, û 14 kes jî bi gulleyan birîndra kirine.

Saziya Çavdêr a Mafên Mirovan daxwaz ji Tirkiyê kir ku dev ji vê kiryara xwe ya metirsîdar berde, û sînorê xwe yê bi Sûriyê re veke.

Tirkiyê herwisa dest bi çêkirina şûreyeke bitonî di navbera Tirkiye û Sûriyê de kiriye, û hêceta Tirkiyê jî ew e ku dixwaze pêşiya hatin û çûna terorîstan bo nav xaka xwe de bigre.

## NY: li Cizîrê hêzên ewlehiya Tirkiyê Tirkiyê 100 kes şewitandine



**Komîserê Bilind ê Mafên Mirovan yê NY derbarê şer û pevçûnên li Cizîrê berdewam dikin daxuyaniyek da.**

Li gor nûçeya "Associated Press"ê, Komîserê Bilind ê Mafên Mirovan yê NY "Zeyd Reid Husên" ragehandiye ku "Di destên me de belge hene ku asayişa Tirkiyê sed kes di nava agir di şewitandine".

Navbirî daxwaz ji Tirkiyê kiriye ku dibe li derbarê vê kiryara hêzên xwe yên ewlekariyê de lêkolînê bike, û encama wê bide me. Navbirî bi tundî Tirkiye derheq binpêkirina mafên mirovan de rexne kir.

Tirkiyê wî şerê ku niha bi hêzên Kurdî re dike, wekî şerê li dijî terorê dihesibîne, û di vî şerî de xwe girêdayî çi usul û pirensîpeke mirovî nizane, û hemû riyên tundûtîj û hovane bi kar tine da ku bikare bi ser aliyê hember de serkeve. Lê serbarê ceribandina van hemû riyan, bi taybetî êrîşa bo ser avahiyekê li Cizîrê û kuştina bi dehan kesî bi awayên herî hovane jî nekariye dawiyê bi şer bîne.

Tirkiye ku di dema piroseya çareseriyê de karîbû di warê aboriyê de pêşkevtineke baş bi xwe ve bibîne, lê niha berevajî di rewşeke wekî salên destpêkê yên şoreşa xelkê Sûriyê de ye, û heya parêzerên mafên mirovan dibêjin, di destpêka şoreşa xelkê Sûriyê, bi qasî sala destpêkê ya şer û pevçûnên di Tirkiyê de, xelkê sivîl bi taybetî zarok nehatine kuştin, û rewşa Tirkiye ber bi xirabiyeke metirsîdar ve diçe.

## Spaha Pasdaran keysa cezayî bo 170 birêveberên "Modlîng"ê li Înistagramê çê dike



**Nawenda Tawanên Organîzekirî ên Saybêrî, ku nawendeke ser bi Spaha Pasdarên Komara Îslamî ya Îranê ye ragehand ku, binyata wan di pirojeyekê de, keysa cezayî bo bi dehan birêveberên rûpelên "Modlîng"ê li Înistagramê ava kiriye û, di pêşerojê de pirojeya wan, wê rûpelên Têlêgramê jî li xwe bigire.**

Nawenda Tawanên Organîzekirî ên Saybêrî ragehand ku, serbarê nasandina 170 kes ji birêveberên rûpelên "Modlîng"ê di Înistagramê de, heya niha "Keysa Dadweriyê" bo 29 kes ji wan hatiye çê kirin û, ji wan 29 kesan jî 8 kes hatine binçavkirin û yên din jî, hatine gazîkirin.

Nawenda Tawanên Organîzekirî ên Saybêrî di daxûyaniyekê de eşkere dike ku, di pirojeya wan de ku bi pirojeya "Enkebûtê 2" hatiye naskirin, birêveberên 57 rûpelên modêlê, birêveberê 51 rûpelên dahênerên kincan (Terahê Lêbas), birêveberê 59 rûpelên wênegir û arayişgeran, û herweha birêveberên rûpela 2 rêkxirawên çalak ên modnasiyê, hatine naskirin.

Nawenda Tawanên Organîzekirî ên Saybêrî herweha zêde dike ku, bona dîtina wan birêveberan, "Emeliyatên Çend qonaxî li derveyî sînorên Îranê" hatine encamdan, lê tu îşareyek bi navê wan welatan nekiriye, ku ew emeliyat tê de hatine encamdan.

Ev pêla zext û givaşa ser bikarberên Înistagramê, piştî gotina Elî Xamineyî derketin holê ku tê de, nîgeraniya xwe derheq bi guherîna şêweya jiyana xelkê, di Îranê de nîşan dabû.

## Partiya Sosyalîst a Kurdistanê, derheq salvegera derxistina kovara Hawarê nivîsek belav kir




**Bona rêzgirtina ji ked û zehmeta Celadet Bedirxan di warê weşandina kovara Hawarê, û xizmeta bi çand û rojnamegeriya Kurdî, Partiya Sosyalîst a Kurdistanê nivîsek weşand ku deqa wê, bi vî rengî ye:**

JI RAYA GIŞTÎ Û ÇAPENEMIYÊ RE

Wekî tê zanîn, 15ê Gulanê, destpêka derxistina Kovara Hawarê ye. Wekî tê zanîn hejmara yekan a Kovara Hawarê di 15ê Gulana 1932an de tê weşandin.

Derxistina Kovara Hawarê, qonaxeke sereke ye di dîroka ziman û wêjeya gelê kurd de. Ji bo ku cara yekem bû - ji bilî çend nivîsên bi frensî- kovareke xwerû bi zaravayê kurmancî, bi elfabeya latînî û bi hişmendiyeke bilind a welatparêzî dihate çapkirin.

Hawar ji aliyê Mîr Celadet Elî Bedirxan ve hate weşandin. Çendin ji nivîskarên Hawarê Celadet Bedirxan, Kamiran Bedirxan, Cegerxwîn, Osman Sebrî , Nûredîn Zaza, Qedrîcan û ...hwd. bûn. Van lehengên kurd, li aliyekî di warê ziman û edebiyata kurdî de rêbaz û rihekî nû afirandin; li aliyê din jî di nav tevgera azadî û rizgarîxwaz a gelê kurd de, heta dawiya jiyana xwe cihê xwe girtin.

Mirov dikare bibêje ku bi derketina Hawarê bendek zexim li ber pêla asîmilasyonê hate girtin; bîr û baweriyeke mezin, sînerjiyeke mezin derket holê. Hawar bû dibistaneke çand, ziman, edebiyat û tarîxa kurdî û di belavbûna hestên neteweyî ya li seranserê welêt de roleke mezin leyîst.

Bi derketina Kovara Hawarê Mîr Celadet bangî kurdan kir, li wan kir qîrîn û hawar, da ku xwedî li zimanê xwe derkevin, zimanê kurdî bikin zimanê sereke yê jiyanê. Mîr Celadet û dildarên Hawarê xwestin ku her maleke ku kurd lê dijîn bibe dibistaneke kurdî, zarokên kurd fêrî ziman, çand û tarîxa xwe bibin.

Em jî wek Partiya Sosyalîst a Kurdistanê, di salvegera derketina Hawarê de qîrîn û hawara Mîr Celadet Bedirxan û hevalên wî wek erkekî xwe dibînin û bi hestên wan bang li gelê kurd, li dezgeh û saziyên Kurdistanî dikin da ku di her qadên jiyanê de bi kurdî biaxivin, binivîsînin, bixwînin; xwedî li zimanê kurdî derkevin, li himberî dagirkeran têkoşîneke xurt bimeşînin ku zimanê kurdî li Kurdistanê û cihên ku kurd lê dijîn bibe zimanê fermî, ji perwerdehiyê bigire heta weşangeriyê di hemû qadên jiyanê de bê bikaranîn.

Em, bang li hemû kurdan dikin ku ne tenê di 15ê Gulanê de, lê her dem xwedî li wê ked, bawerî û hişmendiya neteweyî ya kedkarên Hawarê derkevin.

Em bi vê minasebetê, Mîr Celadet Bedirxan û ew rewşenbîr û nivîskarên ku keda wan di weşandina Hawarê de, di parastin û pêşdebirina ziman û çanda kurdî de heye bi rêzdarî bi bîr tînin.

**14.05.2016**

**Partiya Sosyalîst a Kurdistan - PSK**

## Fîlma Pêşmerge di festîvala “Kan” de hate nîşandan

**Di festîvala “Kan” de vê carê fîlma pêşmerge hate nîşandan, ku ew fîlm ji aliyê derhînerekî Fransî ve hatiye amadekirin.**




Li gora nûçegihaniyan di dema nîşandana vê fîlmê de, pêşwaziyeke gellek baş û balkêş jê hate kirin, û serokê festîvalê jî kincên Kurdî li xwe kiribûn.
Di vê festîvalê de, şandeke Kurdî jî ku ji Ce’ifer Şêx Mistefa, û Sîrwan Barzanî û Viyan Dexîl û stranbêja Kurd Hêlî Lov û 11 kesên din pêk hatibû, di vê festîvalê de beşdar bûn.

Hêjayî basê ye ku dîmenên vê fîlmê rast in, û tê de birîndarbûna pêşmergeyan û şehîdketina wan û gellek aliyên balkêş ê şerê pêşmerge bi DAÎŞ’ê re xûya dike. Bi taybetî birîndarbûna wênegirekî Kurd ê vê fîlmê bi navê Ala Teyib.

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Ji Xwedê pêve keyê deryayê tuneye.
**Rossetti**

Yên bixwazin hînî duan bibin, bila têkevin deryayê.
**George Herbert**

Cesaret mirov dajo buhuştê, tirs jî mirov dajo mirinê.
**Senece**

Kî xwîna merivekî birijîne, wê xwîna wî jî ji aliyê wî merivfî ve bête rijandin.
**Incii**

Karkerekî li ser lingan, ji begekî rûniştî gelekî çêtir e.
**Franklin**

Xebat ne bi tenê jiyana mirov bi dest mirov dixe, herweha jiyanê jî bi dest mirov dixe.
**H. Ford**

Xebat karê herî bi rûmet e.
**Carlyle**

Divê gul xweş bêhn bidin, jin jî biaqil bin.
**Victor Hugo**

Her tişt tê guhertin, lê tu tişt winda nabe.
**Ovidius**

Her tişt diherike.
**Heraklitos**

Ji guhertinê pêve her tiş tê guhertin.
**Zangwill**




## Hevalno ka dê kî ji we vê mamikê bizane?

Tiştek heye:
Sê ling, sê dar
Çar ling pê da
Du ling hat û himik lê da.
Ew çi ye?

(Mêşk)

## Hevalno ka dê kî ji we vê mamikê bizane?

Tiştek heye:
Daran movik anî,
Maran hingiv anî,
Miyan şîr anî,
Kewan xwe rê danî,
Fesad tazî mayî,
Mîran xwe da alî
Gayan şer hilanî.
Ew çi ye?

(Newroz-hatina biharê)

108

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1- Gewru di rît, soru dihavêt.
- Sê tilî sê pê ne, li nav deştê ne, mîr û hakima pal lêne.

2- Deng jê dihêt, rih tê ne.
- Dema mast didimê, bi reqasa xwe re nîvişk li min vedigerîne.
- Sên lingo di siyê da, dun lingo pêda, devê wî li ber zikê diya te, gûyê wî di devê heftê bavê te, tu çawa dikî kêfa te.
- Tipên e xoş tipên e, du destin du pê ne, deng jê tê ruh tê ne.
- Ser nişîve, ling li hewa, spêdê radbin ji ber xewe, karê bêrîvana ewe.
- Tişteké min ji tişta, derê wî li dayka te, gûyê wî di de devê babê te.

3- Marhulîsê di kurê da di lîze.
- Hirve ber û wirve ber, yê di nîvê da mîr Omer.

4- Texa çulî bi kevrî ve.

5- Mirîşka reş kibab e, çiyê bixot se bab e.
- Reş e di agir de sor û gewr e.

6- Qesra du der e, ji derekî derdikevim, ji derekî serdikevim.
- Qesra 2 der, tê çûme der, Ilahu ekber.
- Pat e/mil e bê ser, pişt e bê zig, dest e bê pê.
- Dara di dulê da, dul rizî, dar ma wisa.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî


◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (278)


**Riya şehîdên nû ên PDKÎ, Şehîd Serwan Çeko Rehîmî û Şehîd Seyîd Riza Dirûdger heya serkevtinê wê dom hebe**







